


*“Xebat bona zindîkirin û pêşvebirina zimanê Kurdî erkeke neteweyî û stratejîk e”* ...» 10

Hemexan Efendî:

*Şehîdkirina Dr. Qasimlo û Dr. Şerefkendî rojên nexweş ên jiyana min bûn”* ...» 8



Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de

# AGIRÎ

Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî www.agirimedia.org Hejmar (210) 22-07.2013 Buha (150) Tûmen

## PDKÎ sipasnameyek bilav kir

Komîsyona Teşkîlat a PDKÎ sipasnameyek rû ji endam û alîgirên PDKÎ û xelkê emegdar û mafxwaz ê Kurdistanê bi sedema kar û çalakiyên wan ên bi boneya 22’ê Pûşperê bilav kir. PDKÎ di vê sipasnameyê de ragehand ku em hest û bîra hevxebatî û hevpêwendiya civatên xelkê Kurdistanê bilind dinirxînin û hêviya berdewamî û domandina xebatê dikin bona gihîştina bi serkevtinê.



**Dr. Qasimlo û exlaq di siyasetkirinê de** ...» 5



**Dr. Qasimlo rêalîstek rastîn derheq pirsa jinan** ...» 9



**Yad û bîra şehîdê serkirde Seyîd Selam Ezîzî** ...» 6

## kerîm Perwîzî: “Dr. Qasimlo li ser vê baweriyê bû ku divêt exlaq di siyasetê de hebe”

### Yad û bîranîna Dr. Qasimlo, di binkeya Deftera Siyasî a PDKÎ de bilind hat ragirtin

Roja 22’ê Pûşperê rêûresma 24’mîn salvegera terorkirina Dr. Qasimlo û hevalên wî, bi beşdariya rêzdar Mistefa Hicrî Sekreterê Giştî ê PDK Îranê, şandeya PSK, endamên rêberî, pêşmerge, malbat û mêhvanan ve birêve çû.

Rêûresm bi sirûda netewî ya “Ey reqîb” û deqeyek bêdengî bona rêzgirtin ji canê paqij ê şehîdan dest pêbû û, piştre fîlmek dêkomêntarî li ser “dîtingeha Dr. Qasimlo li ser xebata Kurd” ji beşdaran re hat nîşandan.

Piştre birêz Kerîm Perwîzî Endamê Deftera Siyasî a PDK Îranê gotarek bi vê boneyê ve pêşkêş kir.

Birêz Perwîzî di peyama xwe de got: “Dr. Qasimlo li ser mîzê gotûbêj digel şandiyên Komara Îslamî hat şehîdkirin û belge vê yekê eşkere dikin ku rayedarên Komara Îslamî ji şandiyên xwe re gotibûn ku hekî gotûbêj negehiştin tu encamekê, Dr. Qasimlo teror bikin”.



Birêz Perwîzî herweha di peyama xwe de yad û bîranîna Ebdulla Qadirîazer endamê Komîteya Nawendî a PDK Îranê û herweha Fazil Resûl dostê PDKÎ ku tevî Dr. Qasimlo hatin şehîdkirin bilind nirxand û, piştre basek li der şehîd Seyd Selam Ezîzî endamê Deftera Siyasî a PDK Îranê ku sala 1378’an (1999) bi sedema nesaxiyê koça dawiyê kir, pêşkêşî beşdaran kir.

Di beşek din a rêûresmê de peyama sê yekîtiyên Jinan, Lawan û Xwendekarên Demokrat ên Kurdistana Îranê, ji aliyê Hisam Ehmedî ve hat pêşkêşkirin.

Herweha di merasimê de çend sirûd ku ji aliyê Korsa Kora Hunerî a PDK Îranê û du helbest bi navên “Çirkeyek bêdengî” û “Ey Pêrlaşêz” ji aliyê Golbax Behramî û Şeyma Ellahyarî û pexşanek ji aliyê Faxir Molûdî ve hatin pêşkêkirin

Çend peyam bi vê boneyê ve gehiştibûn destê rêveberiya merasimê ku pêkhatibûn ji:

Peyama Parta Sosyalîst a Kurdistanê
Peyama komîteya Teşkîlata Eşkere, Bêtwên
Peyama komîteya Teşkîlata Eşkere, Pişder



**Guherînkariyên Mîsrê û xelkê vî welatî** ...» 7




*Rojnameya Agirî di malpera www.kurdistanmedia.com de bixwînin.*

Sergotar

# Terorîst ser nakevin

Şehab Xalidî

Terorkirina cudabîran û kesayetiyên bi bandor di xebata azadîxwaziyê de her tim armanca deshilatdarên dîktator û zordar bûye, û wan deshilatdaran jî bona rewa nîşandana wan cînayetên xwe di çarçoveya terorîzma dewletî de, hertim neyarên xwe wek têkderê ewlehiya neteweyî, dijî Îslamê û muharibe bi nav kirine.

Yek ji wan kesayetiyên ku her zû ji aliyê Xomêynî avakerê rejîma Komara Îslamî a Îranê ve biryara jinavbirina wî bi sûçê daxwazkirina mafê rewa ê siyasî û neteweyî yê gelê Kurd hate dan, Dr. Qasimlo bû. Xomêynî piştî hilbijartina Meclîsa Xibrigan got ku hekî Qasimlo li wir ba min dizanî ku çi bînme serê wî.

Xomêynî ji vê demê pêve di ciyê vê ku bîr ji çareseriya pirsa Kurd bike, ket hizra jinavbirina Dr. Qasimlo, û pîlanên curbicur jêre darêtin, û mixabin ew di terorkirina vî rêberê zana de serkevtin, lê bi vê terorê ne tenê xebta PDKÎ û gelê wî nesekinî, belkû heya niha jî rêvîngên rê û şopa wî, rêya wî didomînin, û siyaseta wî ya dirust ji xwe re kirine çiraya xebat û tekoşînê.

Ew rêberê zana jî herçend di nav me de nine,lê piştî şehîdbûnê êdî ne tenê bo beşek ji Kurdan, belkû bo xortên Kurd di parên din ên Kurdistanê de jî, wek sembola xebata neteweyî tê naskirin û di dilê her Kurdekî de dijî.

Ew êdî hemû salê di 22'ê Pûşperê (13'ê Tîrmrhê) de tê bîranîn, û her bi vê bîranînê jî tirs û xofekê dixe nav dilê deshilatdaran ku neçar in çend rojan berî salvegera terorkirina wî jî, Kurdistanê milîtarîzetir bikin.

Lewra ne şehîd Dr. Qasimlo mirî ye, û ne jî rêbaza wî bê rêvîng maye, û xebat berdewam e û di dawiyê de eva Qasimlo ye ku terorîstan bi çok de tîne û dawiyê bi temenê wan tîne.

# Deqê peyama rêzdar Kerîm Perwîzî bi boneya 22'ê Pûşper salvegra terorkirina Dr. Qasimlo û hevalên wî



Kerîm Perwîzî endamê Deftera Siyasî a PDKÎ

Beşdarên hêja, rêvîngên rêbaza Dr. Qasimlo, hûn bixêr hatine, ji aliyê Deftera Siyasî a PDK Îranê ve ez bixêrhtina tev aliyan dikim.

Em li vir kom bûne ku yad û bîranîna şehîd Dr. Qasimlo bilind ragrin û cardin li ser rêbaza pirr ji serbilindî û şanaziya wî pêdagir û wefadar bin.

Şehîd Dr. Qasimlo di rojek weke îro de, di 22'ê Pûşpera sala 1368'an (13.07.1989) de, wate 24 sal berî niha li ser mîzê gotûbêj tevî şandiyên Komara Îslamî hat şehîdkirin, gotûbêjek ku qirar bû tê de rêyek bona çareseriya pirsa Kurd were dîtin, lê dîplomat terorîstên Komara Îslamî bi awayekê hatibûn ku hekî Dr. Qasimlo teslîmî îradeya wan nebe, wî teror bikin.

Her weke belge û deqê gotûbêjê nîşan dide, Dr. Qasimlo heta deqa dawiya gotûbêjê pêdagiriyê li ser mafên gelê Kurd dike û bi tu awayekê razî nabe ku wazê ji mafên Kurdan bîne û li ser wan pirensîpên ku xebat jê re kiriye pêdagir bûye û her di vê pêxemê de jî canê xwe fîda kir.

Ji wê rojê ve ku di sala 1324'an (1945) li bajarê Urmiyê taya Yekîtiya Lawan pêk tîne dest bi tekoşîna siyasî dike û li xwendingehên herî baş ên bajarê Tehranê dest bi xwendinê dike, piştre ber bi Ewrûpayê diçe û li zanîngeh û nawendên herî baş ên xwendinê dist dike bi fêrbûna zanistê.

Di sala 1953'an û di dewrana Musediq de ku nîvçe azadiyek di Îranê de pêk hatibû, vedigere Îranê û dest dike bi xebata xwe a siyasî.

Wî çaxî tê destbiserkirin û piştî heyamek zîndanîbûnê, cardin diçe nava refên şoreşa eşkere û piştre li ser daxwaza xwe cardin ber bi Ewrûpayê ve diçe û dema vedigere, dawî bi tewahiya wan qonaxan hatibû ku bawerî pê hebûye ku birîtî ne ji, azadiya gelan û azadiya însanan û berdewam xebat jê re kiribû û, paşan ji dijî Komara Îslamî di çeperên herî bi zehmetî de xebata xwe domandiye.

Rêberê zana û bilîmet ku di zanîngehên herî baş ên Ewrûpayê û jî îmkanatên herî baş ên jiyanê mifah wergirtiye û derfeta wê yekê hebû ku bona xwe pêgehandin û armancên xwe ên take kesî bixebite, lê vedigere Kurdistanê û di çepera pêşmergatiyê de li dijî zordar û sitemkaran berxwe dide û piştre li 22'ê Pûşpera sala 1368'an (1989) tevî hewalên xwe li ser mîzê gotûbêjan, bi destê dîplomat terorîstên Komara Îslamî hat terorkirin.

Yek din ji wan şoreşvanên ku tevî Dr. Qasimlo bû û xwediyê moralek bilind û zana bû, lê bi sedema mezinahiya Dr.Qasimlo, morala bilind û şoreşvaniya wî gellek caran tê jibîrkirin, şahîd Ebdulla Qadirîazer, Endamê Komîteya Nawendî a PDK Îranê bû.

Şehîd ebdulla mirovek pêgehiştî û xebatkar bû ku heya dawiya jiyana xwe tevî rêberê xwe ê jêhatî bû, lewra hewce ye ku di vir de em yad û bîranîna wî bilind ragirin.

Kesek din ê ku di wan gotûbêjan de beşdar bû, Fazol resûl xelkê Kurdistana Başûr û dostê PDK Îranê û hevdem nasyarê Komara Îslamî a Îranê bû û binav navbeynkariya piroseya gotûbêjan dikir, lê Komara Îslamî bona vê ku tu şûnwarekê ji pîlana xwe bi cih nehêle û cînayeta xwe perdepoş bike, ew jî teror kir.

Herweha hewce ye ku yad û bîranîna qutabiyê bi emeg ê rêbaza Dr.Qasimlo wate şahîd Seyd Selam Ezîzî bilind bê ragirtin ku di 24'ê Pûşpera sala 1378'an a Rojî (1999) koça dawiyê kir.

Beşdarên hêja
Em di mekteba demokrat û di qutabxaneya Qazî, Qasimlo û Şerefkendî de hîn bûne ku di dema şehîdketina rêberên xwe de nagirîn.

Her weke rêberê me yê şehîd bas dike, baştirîn padaş bo şehîdan dirêjîpêdan rêya wan e.

Em dema di kor û boneyên weha de kom dibin û yad û bîranîna şehîdên xwe bilind radigirin, serbarê mehkûmkirina kiryarên terorîstî ên Komara Îslamî, peymana wefadariyê tevî rêbaza wan nû dikin û her weke cihgirê wî yê emegnas, şehîd Dr.Şerefkendî dibêje:"Li ser rêbaza wî pêdagiriyê dikin, yan bi ser dikievin û yan jî serê xwe dadinên".

Eva ku Dr. Qasimlo hewil dida di

xebata netewa xwe de derbixe holê ev bû ku hem netewa xwe pê bigehîne, hem netewa xwe rizgar bike û hem jî di nava çepera şoreş û qutabiyên mekteba demokratê de kesanek rêvîng bin ku xwediyê teybetmendiyên demokrat, û însanî û şoreşgêrî bin.

Di yekemîn pêngav de hewil dide ku hewalên xwe digel cîhana serdem û pêşkevtî binasîne, û wê pêşkevtinê bîne û tevlî partiya xwe bike da ku rêvîngên rêya demokrat bikaribin bibin sembol û mînakek bo xelkê Kurdistanê, lewra di kongireya 4 de bas ji "Sîmaya Demokrat" dike û taybetmendî û xelên bihêz ên kesek demokrat destnîşan dike.

Di vîr de hinek ji wan xalên girîng ku di wane û berhem û xebat û tekoşînê de şehîd Qasimlo hewl daye ku kadr û pêşmergên partiyê li berçav bigirin dixim ber bas û avrûyekê ji wan didim.

Yekemîn mijar pedagiriya wî li ser mafê netewî ye, her weke me bas kir di gotûbêja xwe ya tevî dîplomat terorîstên Komara Îslamî de ,heya deqeya dawiyê jî li ser mafên netewî û xwastek û daxwazên Kurdan pêdagir bûye.

Nehatiye ku bi mafê hemwelatîbûna Kurd weke Îraniyekê razî be, nehatiye ku xwastek û daxwazên gelê Kurd di çend xalên hûr de tesik bike. Heta deqeya dawiyê ku dizanî pêdagirî li ser wê rêbazê wê bi qîmeta jidestdana canê wî tewaw dibe, amade bû canê xwe bide lê li ser mafê netewî û pirensipên û armancên netewî pêdagir bû û berxwe da.

Xalek din ku di şîretên rêberê me yê şahîd Dr. Qasimlo de hatiye û dibe pêdagiriyê li ser bikin ev e ku hertim hewil daye ku hem endam û alîgir û dostên PDK Îranê li ser vê rêbazê berdewam bin û hem jî netewa xwe digel vê rêbazê nasyar bike ku hertim pêdagiriyê li ser azadî, dadperwerî û hevpeywendiya di navbera însanan de bike, jiber ku merema wî gehiştin bi dinyayek tijî ji aştî ye, aştiyek bi vê wateyê ku însan li ser bîr û baweriya xwe, li ser derbirrîna ray û nêrîna xwe, li ser gehiştin bi armancên xwe azad be. Beraberî û wekhevî bi vê wateyê tê ku buhayek vekhev bo însanan bihê danîn.

Beraberî û wekhevî bi vê watayê ne ku ferq û cudahiyên navbera




însanan nemîne, jiber ku jinavbirin û înkarkirina ferq û cudahiyan faşîstî ye, lê Dr. Qasimlo bawerî bi wekheviyê hebû, bi wî wateyî ku di navbera însanan de buhaya hember û dualî bê danîn. Bona vê ku bikarin ferq û cudahî û behre û şiyanên xwe geşe pê bidin û derfetek wekhev ji her kesekî re bê dayîn, dibêje: "Tenê nan bona dirêjîdan bi jiyanê bes nine, dibe azadî jî hebe, lewra em bona azadiyê xebatê dikin.

hekî xelk nehê çewisandin, nan hebe û bi zimanê xwe bixvîne, lê hekî azadî nebe û bi zimanê xwe li ser rewşa welatê xwe nêrînên xwe neîne ziman, bi vî wateyî tê ku sitemek heye û ew jî sitema siyasî ye, partiya me jî xebatê dike bona vê ku sitema siyasî jî nemîne".

Dr. Qasimlo li du warî de bawerî bi azadiyê heye, azadiya tak û azadiya bi kom, wate azadiyên xelkê bi kom jî bên berçav girtin. Tenê bi azadiya takekesî razî nebû û di vê derheqê de dibêje ku di hindek sîsteman de azadiyên take kesî tên dabînkirin, lê azadiyê bi komî tên binpêkirin, azadî dibe li her du warî de bê dabînkirin. Mirovahî dibe hewil bide ku cîhanekê bi afirîne ku tu tak, qat, regez, ol û nijadek nebe kole.

Demokratê bawerî bi wekheviya di navbera jin û meran de ye di malbat û civakê de, demokrat li dijî her cure çevisandinek însan bi destê însan e. Eva waneyên girîng ên Dr. Qasimlo ne ku hetim di guhên me de deng vedidin. Beraberî û wekhevî bi vê wateyê ku mirovan buhayek wekhev heye, derfeta geşepêdana jiyanê ji her mirovekî re bê dayîn. Beraberiya koltûrî, civakî û aborî bingeha parastina ferq û cudahiyên her takekê ye û herweha bingeha pêşkevtina civakê ye. Azadî û beraberî ji hevdu nahên cuda kirin, beraberî di derfetên cur bi cur de merca sereke ya pêşkevtina her tak û wate bexşîn bi azadiya mirovahiyê ye.

Yek din ji wan xalan ku Dr.Qasimlo berdewam pêdagirî li ser dikir, afirandin û xulqandin e,
Kesekî şoreşvan û demokrat divêt ku berdewam afirîner (dahêner) be di bîr û hizra xwe de, dogm nebe, tûşî demargirjiyên korkorane nebe, ku ew çend hevok jî ji zimanê wî bixwe ve hatine gotin:

"PDKÎ wek partiyek şoreşvan ser û kar di gel siyaset, mirov û civakê heye, her yek ji wan jî sabit nînin û guherîn bi ser de tê, ku divêt kadrê hizbî afirandin û îbtikar hebe da ku hîn bibe, heke ne weha be, û her çavnihêr be ku kesek bê û bêjê weha bike, û weha neke, wî karî bi vê şêweyî bike, wê demê kadrê hizbê bona birêvebirina erkên xwe zehmetê nakêşe, û nikare fikir bike, li encam de nikare afirandin û îbtikar hebe û nayê perwerde kirin jî".

Xalek din di rêbaz û hizra Dr. Qasimlo de serxwebûna siyasî û fikrî ye. Ya ku bi awayek zelal anî nav siyaseta Kurd de, û pê li ser dagirt û amade bû ku her bedîlekê jî jêre bide, pêdagirî li ser serxwebûna siyasî û fikrî ye, bi vê wateyê ku hem di warê siyasî de li ser vê bawerê bûye ku kesekî demokrat û rêîvngê riya azadiyê divêt serbixweyiya siyasî hebe, û nabe berjewendî û mesleheta xwe û gelê xwe û partiya xwe li ser bingeha berjewendiya kesên din pêk bîne, berjewendî û mesleheta xwe divêt bixwe diyarî bike, û ên ku dixwazin bi ser de bisepînin, û ên ku dixwazin bi ser de bisepînin, lê berjewendiya vê takê heye yan ne, evne dostê rastîn ê wî nînin, û dibêje: " Bila bi eşkereyî em bêjin ku em sexmeratî dostatiyê tu car dest ji serxwebûna xwe û neteweya xwe hilnagrin û bo berjewendiya neteweya xwe heke hewce be, emê desta ji dostatiyê jî bikêşin".

Yan di warê serxwebûna siyasî de li ser vê baweriyê bûye ku kesekî demokrat û tekoşer divêt berdewam bo xwe fikir bike, nabe bêje ku ew tişt hatiye nivîsandin, di filan ciyê de, êdî her tişt tewaw e, dibêje ku ew tiştên ku di pirtûkan û kovar û babetan de, hatine nivîsandin rastiya reha û mutleq nînin, kesekî demokrat divêt berdewam bîr ji wan nivîsan bike, û di vê derheqê de weha dibêje: "Zanist dogm nîne, zanista civakî pêkve di gel civakê berev pêşve diçe û geşe dike, her eva ku di pirtûkekê de hirek û bîrûrayek hatibe nivîsandin ji me re bes nîne, ku em peyrewiyê lê bikin. Heke teoriyek di dema daneberhevê de eşkere bû ku dirust e, emê pesend bikin, heke eşkere bû ku ne rast e, divêt em dest lê hilgirin".

Xalek din ya giring ku Dr. Qasimlo pê lê ser dagirt têgeh û destewajeyek e bi navê xebata neteweyî demokratîk. Ew heya dawî nefes û dawî dilopa xwîna xwe girêdayî bû bi armancên neteweyî, lê ew girêdayîbûna bi armancên netweyî hevdem girêdayîbûn jî bûye bi armancên demokratîk, bi vê wateyê ku baweriyek kûr bi demokrasî, sîstema demokratîk û azadiya mirovan û civakek demokratîk hebûye, heya vê cihê ku dibêje xebat bo demokrasiyê nabe here jêr sîbera xebata neteweyî. Ew dibêje ku demokrat nasyonalîstek berçavteng nine, heya tirsa vê heye ku xebata neteweyî gellek kûr û radîkal be, û tûşî dogmatîzm û demargirjî û berçavtengiyê bibe, û bibe faşîzm û ber bi şovenîzmê pal bide, lewra bona ragirtina vê tirs û tehlûkeya ku li ser rê ye, tê û bas ji demikarsiyê dike, û vê bi xebata neteweyî demokratîk ve girê dide.

Xalek din ya giring a rê û şopa Qasimlo wata bexşîna bi jiyanê ye. Kesek, takek dikare di nav civakê de, berjewendiyên xwe bi vî awayî ku dixwaze biparêze, lê gelo jiyanek baş û rehet û berjewendî tenê bes in bona vê ku

mirovekî şoreşger wek miroveke xwedî armancên bilind, hemû tiştek hatiye amadekirin û êdî tu tiştek hewce nine? Me got ku dDr.

Qasimlo wek sembol û wek rêberek ku dikare mînak be bo gelê xwe, baştirîn jiyan û baştirîn cihên cîhanê bi cih dihêle, tê nav çeperên pêşmergeyan de , û di rastî de wate bexşîn bi jiyanê ji dîtingeha Dr. Qasimlo ve çend xalên giring bi xwe ve digre.

Ya yekemîn xwediyê armancek bo pêşerojê, bona vê ku bizanî ku di jiyanê de ber bi kîderê ve dimeşî? Pêşeroja te bo kîderê ye, pêşeroja te bo kîderê ye, nabe ji bîr bikî ku riya te berev kîderê ye û divêt çi bikî, wate xebat û tekoşîn di pêxema wan hêvî û armancan de.

Kesek dikare armancên gellek bilind û mezin jî destnîşan bike, lê dema ku te xebat jêre nekir, û tekoşîn û xebitîn têde nebe, ew yek tê vê wateyê ku te baweriyek kûr bi armancên xwe nîne. hevpêwendiya bi mirovan re, ku tu wek miurovekî li mirovên din binêrî, û hewil nedî ku ên din bikî koleyên xwe, yan wan bikî pirebazk bo xwe, û rêz û hurmetê ji mirovan re danî û dijî bişavtina mirovan bî.

Ew çen mînak ji wan xalên giring bûn, ku Dr. Qasimlo di rê û rêbaza xwe de hewil daye ku me hînî wan bike, û niha ku em wî rêberî bi bîr tînin hewce ye ku cardin em wan tiştan bixwînin.

Dr. Qasımlo wek rêberekî şoreşger bû û wek rêberê partiyekê jî siyaset dikir, tenê ew nebû ku şoreşvan be, tenê ew nebû ku bas ji armancên pêşerojê bike, belkû tevî vê ku wî siyaset dikir û siyaset jî li cem wî, xapandin, vir û direvkirin di gel xwe û derdora xwe û gelê xwe nebû, belkû berdewam pêdagirî li ser vê yekê dikir ku divêt me di siyasetê de exlaq hebe.

Ew exlaqê tîne nava siyasetê de û dawiyê jî bi vê efsaneyê tîne ku siyaset tê wateya vir û derevan. Siyaset li cem Dr. Qasimlo wate dîtina rastiyan. Wî bi xeyal û bi xewnên helbestvanane siyaset nedikir, belkû rastiyên nav şoreş û nav civakê de didîtin, û astengên li pêşiya xwe didîtin, teslîmî rastiyên tal nedibû, di demên hestyar de nedidorand û teslîm nedibû,siyaset li ba wî hunera mumkin bû, hunera mumkin hem bi vê wateyê ku wî hem îmkanat û hem jî mumkinat berçav digirtin.

Li cem wî huner bi derevan nebû, belkû hunerkirin bo hunerkirin jî pêk dihat ji afirandin û korkorane fikirnekirin, hunera ku îmkana wê hebe afirandin e di nav rastiyan de û di nav îmkanatan de, evne ew wane û desrsên giring bûn ku Dr. Qasimlo berdewam digotin, her evne bûn ku berdewam dianî nav xelkê û di nav civakê de, û bona dijatîkirina bi wan xalên giirng bûn ku Dr. Qasimlo şehîd kirin.

Rejîma Komra Îslamiya Îranê di wan hemû waran de, û di wan hemû teweran de dijî bîrûboçûna Dr. Qasimlo bû, îdeolojiya kevneperestane ya wilayeta feqîh di gel azadî, wekhevî, di gel afirandin, di gel hunera mumkin, di gel exlaqiyat û di gel şoreşvanbûnê û ...hwd nedihat. Hizr û bîra Dr. Qasimlo tehlûke bû bo ser îdeolojiya Komara Îslamiya Îranê, lewra Komara Îslamî a aÎranê ew teror kir.

Niha piştî derbazbûna 24 salan emê avirek kurt û bilez bidne vê rewşa ki Komara slamiya Îranê têde ye. Ew rejîma niha di astê derekî de bo hemî cîhanê naskirî ye, wê demê ku Dr. Qasimlo basa vê dikir ku rejîma Îranê rejîmeke kevneperet e, rejîmeke tevdanîkar û têkder û kevneperest û terorîst e, renge gellek aliyan bawerî pê nedikir û gellek alî û welatan bi xatirê berjewendiyên xwe di gel wan alîkarî dikirin, lê niha êdî bo tewaya cîhanê eşkere bûye ku rejîma Komara Îslamiya Îranê têkder û terorîst e û bo bidestveanîna çekên navikî hewlê dide bo vê ku rejîma xwe ragire.

Lewra niha li jêe gemaro û tehrîmên herî tund de ye, bi awayekê ku heta mezinehêzên wek Çînê jî ku palpiştê aboriya Komara Îslamî ya Îranê bûn niha hêdî hêdî li jêr bandora wan dorpêçên aborî de ji Îranê dûr dikevin, rejîm bi tewahî di warê siyasî deîzole bûye, û tenê dostê wê rejîma Beşar Esedê xwînxwar û girûpa Hizbullah ya terorîst e. Di navxwe de rejîma Komara Îslamî herçend dixwaze weha nîşan bide ku ew yekdest in û her hemû peyrewê wîlayeta feqîh in, û tu pirsgirêkek di navbera wan de nine, û yekdest û qahîm li hemberî dijminên rejîmê de sekinîne, lê dema em li rastiyan dinêrin, ne weha ye.

Wan di navxwe de dehan, û sedan kêşe û alozî hene û çendîn




girûpên nav rejîmê de hene ku li ser berjewendiya xwe û li ser talankirina serwet û heyiya welat kêşe û nakokî bi hevre hene, û her girûpek bo aliyê xwe radikêşe û dijî girûpa din e.

Di dawî maşkanêya hilbijartinê de ku keseke nûnerê weliyê feqîh di Konseya Ewlekariya rejîmê de dibe serkomar , her ji nav ve girûp û bandên nav rejîmê de gefan li yektir dikin, herçend ku Xamineyî wek rêberê rejîma Îranê gef xwarine ku bila kêşe û nakokiyan nebne nav xelkê de û bila ew agehdarê kêşe û nakokiyên me nebin, û dijmin bi vê yekê dilxweş nebin, lê nakokiyên wan li ser talankirina serweta û samana welat û li ser berjewendiyên wan ew qas eşkere ye ku nahê veşartin.

Rejîma Komara Îslamiya Îranê li ser tepeseriyê berdewam e, û niha jî kesek hilbijartine ku bikare bi edebiyatek îroyîtir mana rejîma xwe bo çend mehek yan çend salan bidomînin, lê hevdem tevî vê ku li derve dixwazin bi qewlê xwe nerm bin û di edebiyata xwe de guherînê pêk bînin, lê li ser siyaseta terorîstî û têkderane ên xwe û hewildan bo gihîştina bi çekên navikî tu guherînkariyek bi ser xwe de neanîne, û tenê diwazin ku di axavtinê de guherînê bi ser xwe de bînin.

Di navxwe de jî tepeserî tundtir dibe, û hevdem kirîzên nav civakê de jî zêdetir dibin, bîkarî zêde dibe, giranî zêde dibe, girtin û azara xelkê zêde dibe, wate hemû ew tundtîjiyên ku li heyamê 34 sal deshilatdariya rejîma Îranê de bi dijî neteweyên Îranê de hatine encamdan, niha di Kurdistanê de tundtir jî birêve diçin.

Gelo çima weha ye? jiber ku ew dizanin ku neteweya Kurd ne di destpêkê û ne jî di dirêjiyê de, û ne jî di niha û pêşerojê de di gel îdeolojiya kevneperestane ya wîlayeta feqîh yek nagre, neteweya Kurd tu carî serî bo Komara Îslamî natevîne, lewra berdewam zulm û zordariya li ser neteweya Kurd zêdetir dike, û niha jî hemû wan girtin, îşkence, bêkarî, tûşkirina bi maddeyên hişber pitir ji her derê di nav Kurdan de birêve dibe.

Erkê me wek rêvîngên riya Dr. Qasimlo wek dersxwanên Qazî, Qasimlo û Şerefkendî û wek tekoşerên demokrat ew e ku em di nav xwe de, xwe hînî baweriyên şoreşgerî û xebatkarane bikin, û refên xwe ji caran qahîmtir bikin, û hewil bidin ku yekrêziya neteweyî pêk bînin û di nav dijberên Komara Îslamiya Îranê de hevahengî û yekgirtinek zêdetir pêk bînin.

Ez di dawiya axavtina xwe de qala çend gotinên Dr. Qasimlo dikim, ku wî di 25'ê Gelawêja 1363'an (1984) de ew axivtin kirine û ew gotinên wî niha jî bo me hewce ne. "Rejîma Xomeynî bo xwe derbazkirina ji bonbestê mijûlê paşvekêşanê ye û rûyê xweş ji xwe nîşan dide, lê tu kes nabe bê vê rûyê riyakarane yê vê rejîmê bihê xapandin, endamên hizbê divêt rêxistina me ku çeka herî giring ya me ye bihêztir û qahîmtir bikin, divêt yekparçeyî û yekîtiya siyasî di hemû organên hizbê de cihgir be, nabe rê bihê dan ku têkder û lader (ji rê derketî) û ên ku morala xwe ji dest dane, partiya me ya hezkirî têk bidin.

Divêt ku em tewaya alîkariya xwe li gel hemû hêzên komarîxwaz çi di Kurdistanê yan di beşên din ên Îranê de bihêz bikin û em hemû bi hevre bo anîne ser karê ya rejîme-

# Dr. Qasimlo û exlaq di siyasetkirinê de

## Nerîna Lîder-an


Hoşyar Zêbarî:

“Em nikarin pêşiya veguhastina çekên Îranî bo Sûriyê bigrin”


Erdoxan:

“Mafê me ye ku em dijî derbe (Kudeta)’yan derkevin”.


Netanyaho:

“Rûhanî Gur e di pêstê pez de”


Morsî:

“Min biborin û min azad bikin”





Arif vêlzî

Di Îran û Rojhelata Navîn de, kêm in ew xweşmêrên ku rêberiya tevgerek mafxwazane û pir ji qurbaniya weke tevgera Kurd li dijî rejîma Komara Îslamî a Îranê dikin û hevdem, di qonaxên curbicur ên siyaset û xebata xwe de, di dema tengavî û dema serdestiyê de, di dema bêhêzî û ew qasê hêz de, di navxwe û derveyî xaka xwe de, girêdayî bin bi berjewendiyên netewî û buhayên mirovî û bi giştî li berçavgirtina exlaq di pêvajoya xebata siyasî ya xwe de.

Dr. Qasimlo yek ji wan siyasetvanan e ku bo cara yekemîn di nav tevgera Kurdî û heta Îranî de jî, serbarê vê ku bi xwe dibêje:

“Em yekemîn rêkxirawa siyasî di Kurdistan û Îranê de ne ku me exlaq tevlî siyasetê kir”, lê di rastî de her bi xwe bû ku peywendiyek qenc û mirovtewer di navbera exlaq û siyasetê de pêk anî û siyasetên PDK Îranê li ser bingeha azadiya beyan, diyalogtewerî, gotara zelal a siyasî, rastî û dirustî, parastina berjewendiyên netewî, serbixweyî ya siyasî û biryardanê, xwe parastin ji teror û tundûtîjiyan, parastina mafê mirov li hember mirov de û ...hwd darişt û di rojên dijwar ên berevaniya çekdarî de, parastina sînorên exlaqî ji aliyê pêşmerge û endamên PDK Îranê ve kire erk û biryar, û her eva jî bûye sebebê vê ku, ne tenê bal endam û alîgirên PDK Îranê, belkî bal aliyên din ên opozisyona Kurdî û Îranî û heta cîhana derve jî, Dr. Qasimlo weke serkirdeyekî aştîxwaz û xwedî exlaq ê siyasî navûdengê peyda bike.

Yek ji fakterên ku diselimîne cuda ji vê ku Dr.Qasimlo heya ser hêstikan demokrat bûye, ew e ku wî weke pirensîpek siyasî û şoreşvanî baweriyek kûr bi vê hebû ku dibe berjewendiyên netewî berî her berjewendiyek din bêne berçav girtin û her eva jî bû ku berawajî hindek aliyên din, serbarê peywendî tevî gelek aliyan, tu caran li ser hisaba Kurdên parçeyek din, amadeyî dirêjîdan bi wan peywendiyan nebû û di tewahiya qonaxên pir ji evraz û nişîvên xebata siyasî û çekdarî de, serbixweyî ya siyasî û biryardana partiya xwe bi tewahî parast û heta rolek erênî jî li dor çareseriya aştiyane a pirsa Kurd di beşên din ên Kurdistanê de dilîzt.

Lewra di dawiyê de hewce ye ku bê gotin, dîtingeha pir ji hesta mirovtewerî a Dr.Qasimlo derheq têkiliya siyaset û exlaqê, yek ji wan mîratan e ku niha jî PDK Îranê û rêvîngên wê rêbaza pîroz, şanaziyê pêve dikin û vê bîrokeyê bi ronîkerê rêya xebata xwe dizanin.

# Yad û bîra şehîdê serkirde Seyîd Selam Ezîzî



Mu'tesem Nûranî

Roja 24'ê Pûşpera îsal, 14 sal bi ser koça bêwext ya kak Seyîd Selam Ezîzî de derbaz dibe.

Kak Selam yek ji wan rêberan bû ku bi tekoşîn, îmana polayîn, û hêza bêbinî, gellek zû karî ku pileyên teşkîlatî bibire û bigîje astek bilind. Ew hem di warê siyasî, hem di warê civakî, û hem jî di warê birêveberiyê de wek serkirdeyekî piragmatîk û xwedî tecrube û hilketî, di qada tekoşînê de derdikeve.

Renge hekî kesek şarezayê jiyana kak Selam nebe, nezane, lewra hewce ye ku bihê gotin ku kak Selam ji malê dunyayê, û ji rewşa jiyanê ji pile û payeyên civakî, tu tiştek kêm tunebû, ew dadwer û berpirsê dadgeha şaristanekê bû,kesayetiyekî civakî û hezkiriyê xelkê bû.

Di heman dem de berpirsatiyeke bilind ya hikumetî jî hebû. Wî dizanî ku hekî di vê pile û payeya hikumetî de bimîne, divêt biryarên nerast û paşvemayî ên rejîma axûndî bi ser xortên gelê Kurd de bisepîne. Bi îradeya şoreşvanî dest ji tewaya wana kêşa, û riya xizmet bi neteweya xwe hilbijart û hate nav qada xebatê.

Jêhatîbûn, mandînenasî, û kar û tekoşîna wî serkirdeyên mezin bû sedema vê ku li beşek zaf ya organên PDKÎ de her ji Komîte Şaristanê ve bigre heya digîje pêwendiyên derve û komîteya Nawendî û Deftera Siyasî, berpirsyatiyên hizbî pê hatin sipartin û li birêveberiya erkên xwe de li hember hizb û neteweya xwe de serbilind hate der, û bû rêberek realîst û paradaym. Ez di Komîsyona Siyasî Nîzamî de hevkarê wî bûm, û ji nêz ve agehdarê dilsozî û şiyanên wî bûm, ew kadr û pêşmergeyên ku ji bo karê hizbî serdana wî dikirin, bi awayek lojîk raşnal, bi wan re qise dikir û hewil dida ku bi hevalên hizbî re reftarek usulî û dostane bike. Rûxweşiya wî, hêz û şiyan dida hevkarên wî, di karê hizbî de mandî nedibû, û gellek caran heya demên direng ên şevê serdana binkeyên hizbê dikir, û tevî vê ku ew serkirdeyekî siyasî bû, fermanderek xwedî şiyan ê nizamî jî bû.



Kak Selam di heyamê 20 sal tekoşîn di nav PDKÎ de bibû kesayetiyek bilind û cihê baweriyê, û di warê fikrî û siyasî pê gihîştibû, xwedî behre û qelem bû, pirtûka Sefera bê vegeriyan nivîsand û çend berhemên edebî û lêkolînên din di ber destên wî de bûn ku mixabin mirinê rê nedayê ku wan berhemn bidawî bîne.

Riha kak Seyîd Selam Ezîzî û tewahiya şehîdên riya rizgariyê şad, û hêviyên bilind ên wan bêne cî.

# Simînarek li ser şehîd Dr. Qasimlo di zankoya Koyê de birêve çû




Yekyetiya Xwendekarên Demokrata Kurdistana Îranê li bere berê 24 saliya terorkirina şehîd Dr. Qasimlo semînarek zanistî li ser bîr û hizr û dîtingehên wî rêberê mezin ê kurd birêve bir.

Roja çarşemî 19'ê Pûşperê li zankoya Koyê semînarek bi navê "Dr. Qasimlo, Sosyalîzma Demokratîk, Rêberî" birêve çû ku çar kesayetiyên Ekadîmîk û vekoler li ser mijarên semînarê axivîn.

Semînar bi ragirtina deqeyekê bêdengî bo rêzgirtin ji şehîdên rêya rizgariya kurdistanê, bitaybet şehîd Dr.Qasimlo dest pêkir.

Panêla yekem ya konferansê, bi beşdariya Kerîm Perwîzî Endamê Defter Siyesî ya PDKÎ û Hisam Destpîş mamostayê zanko hat vekirin, û tewera destpêkî ya Kerîm Perwîzî bû ku basa Sosyalîzma Demokratîk û dîroka sosyalîzm û hatina wê bo Îran û kurdistanê bû û wî got: "De. Qasimlo li kongireya 4, 5 û 6 di hewlê da bû ku sosyalîzma demokratîk bîne nav hizra siyasî ya PDKÎ û piştre sosyalîzma demokratîk bû armanca dahatî ya PDKÎ.

Piştre Hisam Destpîş, mamostayê Zankoyê basek bi navê "Qasimlo ji efsanê ve bo rastî" pêşkêş kir

Di panêla duyemîn de rêzdar Perwîz Rehîm Qadir basek bi navê "Qasimlo li hizrên siyasî" de pêşkeş kir û piştre rêzdar Soran Selîmî, rojnamenivîs û vekoler basek bi navê "Xebata çekdarî di dîtina Qasimlo" de pêşkeş kir.

Li beşek din a semînarê de Xelata Qasimlo ji aliyê YXDKÎ pêşkeşê rêzdaran Xidir Sidaqet, Mihemed Xan Mosa'dî, Fethula Xûbayî, û Mihemed Nasirî pêşmergeyên kevnar û rêvîngên rêya Dr. Qasimlo kirin




# Guherînkariyên Mîsrê û xelkê vî welatî



Dara natiq

Gelê hişyar û xwedî bîr û îradeya mafxwaze Mîsrê piştî çendîn dehikan hukmê leşkerî û zulm û zordariya hikûmeta Husnî Mubarek bi rêxistina şoreş û serhildaneke sertaserî bi dijî deshilata leşkerî a Mubarek û di pêxema bidestveanîna deshilatek gelî û demokratîk, ku têde tewaya pêkhateyên vî welatî bi aştî û mafê wekhev di diyarîkirina qedera xwe û îdareya welat de beşdar bin, di roja 25.01.2011'an de dest bi serhildanê kirin ku di 11.02.2011'an de dîktator û efserê kevnar ê Mîsrê ji textê deshilatdariyê avêtin û qonaxek pirr ji hêvî û guherînek çarenûssaz di pêxema pêkhatina jiyan û pêşerojek geş di vî welatî de dest pêkir.

Di qonaxa piştî hiloşîna deshilata Mubarek de Partiya Azadî û Dad a ser bi Îxwanelmoslimîn a Mîsrê karîn ku di heyamek kêm de, û bi dana komek diruşman di pêxema avedankirin û baştirkirina warê aborî ya welat û warê bijîva jiyana xelkê, bala piraniya xelkê wî welatî bo aliyê xwe rabikêşin, û li piroseya hilbijartina parleman û serokatiya wî welatî, îdareya siyasî a welat bidestve bigrin û Mihemed Morsî wek serkomarê welat hate hilbijartin, lê di heyamek kêm ya deshilatdariya xwe de Îxwanan dixwastin ku sîstemek Îxwanî, bi ser civaka hişyar a Mîsrê de bisepînin ku berevajiyê wan xwestekan bûn ku di pêxemê de şoreş kiribûn.

Mixabin Mihemed Morsî ne tenê hewil bo piraktîzekirina wan soz û dirûşmên ku dabûne gelê Mîsrê guhê xwe nedayê, belkû nekarî yekdengiyek nîştimanî di vî welatî de pêk bîne û nexwest çavnihêriyên xelkê vî welatî ku di pêxemê de şoreş kirin bi cî bîne.

Navbirî ne tenê aboriya welat cihgir nekir, belkû aboriya welat rojbiroj berev xirapbûnê diçû, û kêşeya aborî meztirîn arîşeya xelkê wî welat bû. Rêjeya bêkarî di serdemê Mubare ji sedî 9 bû, lê niha li gorî Sindûqa Navneteweyî a Dirav %14 derbas kiriye.

Giranî û bêqîmetbûna perê wî welatî, enfilasyon (tewerom, helawsan), û kêmbûna şevat û hewcehiyên rojane ên xelkê rû li zêdebûnê ye.

Sekinîna çalakiyên zêdetir ji 4500 kargehên berhemanînê û kêmbûna rêjeya geşt û gozar di vî welatî de aboriya Mîsrê bi tewahî lawaz kiriye. Dewleta Morsî ne tenê nekarî ku tenahiyek tewaw di welat de cihgir bike, belkû hinek derfet pêk anîn ku ew taqmên tundrew ku xwendinek tundûtîj ji Îslamê hene, sîmayê pîroz ê olê Îslamê lekedar bikin, û ji aliyek din ve pirsa ewlehiya neteweyî ya welat û piroseya aştî û demokrasî û mafê mirov bi tewahî tûşî tirsê kiribû.

Sînordarkirina azadiyê tak û azadiya bîrûra eşkerekirinê û çalakiyên medenî, mafê jinan, îzolekirina girûp û aliyên din, piraktîzekirina kultura tundûtîjiyê di nav civakê de, hokar û sedemên nexwastî bûn ku armancên şoreşê ji rê derxistin, û berevajiyê çavnihêriyên gelê serhildayî ê Mîsrê bûn, ku xelkê Mîsrê pêre berbirû bûn.

Siyaseta hewildana berev yasa û rêsayên çaxên kevn, û ew kêmasiyên ku me qala wan kir, hinek hokar bûn ku gelê hişyar û mafxwaz ê Mîsrî carek din li 9'ê Pûşperê bi rêxistina tevgereke nerizayetiya giştgîr bi dijî deshilata tekrewane ya Morsî û bi cih anîna armancên şoreşa Mîsrê û bi piştevaniya hêza leşkerî di 12'ê Pûşper dawî bi deshilata yek salî a Mihemd Morsî û Îxwanan anî û karkirina li gorî yasaya bingehîn ragirtin, û berpirsê Dadgeha Bilind a Yasaya Bingehîn wek serkomarê dimikî yê Mîsrê hate diyarîkirin û sonda yasayî xwar û li 25'ê Pûşperê hikumeta dimikî bi serokatiya Hazim Elbeblawî wek bi bê beşdariya dilxwaz ya Îxwanan pêk hat.

Guherînkariyek ku li ser astê navçeyaî û cîhanî helwestên curbicur li pey xwe anîn. Welatên Erebî wek Erebistan, Qeter, Koweyt û Îmarat çand demjimêran piştî vê bûyerê piştevaniya xwe ji vê pêngava arteşê û îradeya mafxwazane ya gelê Mîsrê ragehandin, û herweha welatên Ewropayî, Amerîkayî û NY, tevî helwestgirtinên cuda di vî warî de nîgeraniya xwe ji rewşa hestyar û aloz ya niha ya Mîsrê ragehandin. Guherînek ku niha civaka Mîsrê bi ser du eniyan de parve kiriye, eniyeke laîk û demokrasîxwaz û eniya Îslamî û dijî laîkiyê, ku amadeyê tu cure sazanekê nînin, û di hewla pêkanîna aloziyan û kêşeyan de ne, ku ew yek rewşê berev şerek navxweyî ve diçû.

Lê ya ku di vê mijarê de hewce ye li ser bisekinin hişyariya xelkê mafxwaz û şoreşger ê Mîsrê ye, ku tevî pêdagiriya li ser xwestek û daxwaziyên xwe di pêxema pêkanîna civakek demokratîk û mirovtewerane de, amade ninin ku bi tu awayekê berev paşve vegerin û stûxwarên deshilatdarên peyrewên îdeolojiyek taybet bin.



# Hemexan Efendî: *"Roja herî nexweş ku bandor xistiye ser min û tu caran ji bîra min naçe, roja şehîdketina Dr. Qasimlo û Dr. Şerefkendî ye".*





Hevpeyvîn: Faxir mewlod

Hemexan Efendî kurê Mewlûd, sala 1322'an (1943) li gundê "Axdere" ya ser bi bajarê Diwanderê di malbatek desteng û hejar de tê dinê.

Hemexan bi sedema feqîriya malbata xwe nekariye here xwendingehê, lewma ew jî weke para herî zaf a zarokên serdemê xwe nexwendewar ma ye. Ewniha xwediyê du zarokan bi navên Şengar û Koçer e.

Hemexan derbarê nasîn û tevlîbûna xwe bi PDK Îranê dibêje: "Piştî wê ku PDK Îranê di sala 1357'an (1979) de xebata xwe ya eşkere ragehand û di piraniya gund û bajarên Kurdistanê de xebata siyasî dest pêkir, di demek kêm de teşkîlata partiyê li derdora Dîwanderê bû xwediyê nifûzek bihêz û her ew nifûza bihêz jî ez xistim bin bandora xwe û bûye sebeb ku ez jî siyasetê hez bikim û biryar bidim tevlî refên partiyê bim.

Lewma di sala 1357'an (1979) de, min xwe bi binkeya PDK Îranê li "Şaqelayê" ku wî çaxî di bin serperestiya Şehîd Riza Fetahawayî de bû nasand û bi awayek fermî çeka pîroz a pêşmergatiyê min hilgirt."

Hemexan dibêje: "Bi dirêjahiya temenê pêşmergatiya xwe, min berpirsatiyên cur bi cur weke berpirsê tedarokat a hêza Dîwanderê û herweha berpirsê zîndana wê hêzê li Şaqelayê wergirtine û di piraniya şerên derdora Seqiz û DÎwandere û Hewşarê de beşdar bûme".

Hemexan Efendî derheq rojên herî xweş û herî nexweş ên jiyana xwe de weha dibêje: "Jiyana pêşmergatiyê jiyanek nexweş û bi êş e, lewma rojên nexweş tê de zaf in, lê roja herî nexweş ku bandor xistiye ser min û tu caran ji bîra min naçe, roja şehîdketina Dr. Qasimlo û Dr. Şerefkendî ye.

Di hember de jî roja herî xweş a jiyana min ev e ku Dr. Qasimlo hatibû û tevî hêza Dîwanderê nûçeyên radyoya "Mocahidîn"ê guhdarî dikirin, radyoyê gellek tan avêtin, piştî bidawî hatina nûçeyên radyoyê Dr. Qasimlo got ku rûyê wan tan û propagendeyan li me wate PDK Îranê ye, lewma ez dibêjim ku hekî ez bi tenê jî bimînim, disan jî vê partiyê Îdare û birêve bibim.

Eva jî roja herî xweş a jiyan min bû û tu caran jibîr nakim, jiber ku tewahiya kadr û pêşmergan moralek bihêz ji gotina Dr. Qasimlo wergirt in."

Hemexan Efendî derheq derbazbûya xwe dibêje: "Gellek kesan daxwaz ji min kirine ku destan ji şoreş û pêşmergatiyê bikêşim,lê tenê bo yek deqeyê jî ez nesekinîme û ji pêşmergatiyê mandî nebûme û niha jî şanaziyê bi derbazbûya xwe dikim".

Hemexan rû li kadr û pêşmergên PDK Îranê dike û dibêje: "Heta hûn dikarin bi paqijî û dilsozî ve pêşmergatiyê bikin û ji pêşmergatiya xwe dudil û dilsar nebin û hertim şanaziyê bi derbazbûya xwe bikin".

Hemexan Efendî rû li xelkê Kurdistanê dike û bi vê gotinê dawiyê bi gotinên xwe tîne: "Xelkê Kurdistanê daxwazê ji we dikim ku berdewam piştewaniya PDK Îranê bikin û weke berê pişt û penaya pêşmerge bin û herweha daxwazê ji wan kesan dikim ku çeka rejîmê hilgirtine, çeka xwe danên û cardin vegerin hembêza xelkê xwe".

> *"Heta hûn dikarin bi paqijî û dilsozî ve pêşmergatiyê bikin û ji pêşmergatiya xwe dudil û dilsar nebin û hertim şanaziyê bi derbazbûya xwe bikin".*

# Dr. Qasimlo rêalîstek rastîn derheq pirsa jinan

Kesên ku bikarin bo mideheke dirêj di dilê mirovan de bimînin û bibin sembola mirovahî û mirovdostiyê, pir kêm in. Ew netewên ku xwediyê rêberek karîzmatîk û şoreşvan in, zêdetir ew in ku bona bidestveanîna mafên xwe xebat kirine.

Li welatê Hindûstanê Mihatma Gandî, li Afrîqayê Nêlson Mandêla, li Amerîkayê Martîn Lûtêrkîng û li Kurdistanê jî Dr. Qasimlo mînaka wan rêberên karîzmatîk û şoreşvan in.

Ev rêberane xwediyê vê taybetmendiyê bûne ku rastiyên civaka xwe dîtine û eva jî rêalîstbûn(waqi'xwaz) wan derdixe. Di vê pêvajoyê de hejmarek pirsên girîng li berçav girtine ku yek ji wan pirsa jinan e ku di rastî de yek ji pirsên herî girîng a mirovahiyê ye.

Renge Dr. Qasimlo banga vê yekê nakiribe ku fiminîst e, lê eva ku di kiryar û gotarên wî de berçav dikeve, vê rastiyê diselimîne ku şehîd Qasimlo bi her awayek mumkin di hewla geşepêdana hizra yeksanîxwaziya jin û mêran de bûye û di vê derheqê de jî xebatek berdewam meşandiye.

Dema em xwendinekê li ser biyavên siyasî ên weke sosyalîzm û sîstema demokratîk û hizra kesk li Ewrûpayê bikin, bi eşkere xûya dike ku eva li gotar û qelema Dr. Qasimlo derheq bi pirsa jinan derdiket holê, berhema nasîna wî bû li ser cîhana modêrn û pêşkevtî.





Çeko Ehmedî

Lê hunera sereke ya wî di wê de bû ku rewşa civaka Îranê bi giştî û Kurdistanê bi taybetî nirxandibû û li ser bingeha civakek weha teoriyek pêşkêş dikir.

Tewahiya belge û dêkomêntên ku niha di dest de ne, vê yekê diselimînin ku Dr. Qasimlo piştewanê rastîn a pirsa jinan bû û bi awayek berdewam û ji her rêyekê ku îmkan heba, handerê jinan bû bona geşekirina zêdetir û hewlên zêdetir bona bidestveanîna mafên xwe.

Ew yek nahê înkarkirin ku şehîd Qasimlo evîndarê xwezayê bû û li ser vê bingeh û zanistê bû ku bi wî qasî hewl dida pirsa jinan bixe ber bas, jiber ku ev rastiya ku dibêje jin û xweza du têgehên ji rengê hev in bi zelalî fam kiribû.

Wî dizanî ku bê ektîv û çalakbûna jinan, cardin civak wê digel arîşeyan berbirû be û heya pirsa jinan nehê çereserkirin, civak nikare bi asûdeyî pêvajoya dîrokî ya xwe bipîve.

Lê li vir pirsyarek girîng derdikeve holê ku gelo, li gorî dîtingeha Dr. Qasimlo hewce bû ku wekheviya di navbera jin û mêran de li gorî wan pîvanan be ku di rastî de ji aliyê mêran ve hatine diyarîkirin, yan li ser vê baweriyê bû ku dibe ferq û cudahiyên di navbera wan de bên diyarîkirin û bona zêdetir geşepêdana taybetmendiyên jinan hewil bê dan?
Bê guman bi liberçavgirtina hizra rêalîstî a Dr. Qasimlo, eşkere ye ku bi hemû hêz û şiyana xwe hewil dida ku dûr ji dirûşm û berjewendiyên hizbî û takekesî, bona zêdetir bawerî bi xwe peydakirina jinan alîkar be û di vê rêya pir ji asteng de piştewanê rastîn a wan be.

Dr. Qasimlo weke jin li jinê dinêrî û nedixwest ku jin weke mêran be, belkî geşekirina herî zêde a jinan armanc û baweriya rastîn a rêberê tu car nemir ê Kurd bû.

# Di her demjimêrekê de pitir ji 20 bijarde û xwendewar ji Îranê direvin

**Li gorî amaran di her demjimêrekê de 23 bijarde û xwendewar bi armanca dirêjîdan bi xwendinê ber bi welatên Rojavayî diçin û eva jî bûye sedem ku li ser asta cîhanê Îran di pileya yekemîn a revîna bijardeyan de be.**

Qasim Ehmedî nûnerê parlemêntoya Îranê serbarê rexnekirina pergala perwerdehî a Îranê, revîna bijardeyan bi xisarek mezin da zanîn.

Ji aliyek din ve Hesen Husênî cihgirê rêxistina bijardeyan ragehand ku di salên 1382 heya 1386'an a Rojî de (2003 heya 2007), 308 kes ji serkevtiyên Olempiyadê û 350 kes jî ji yekemînên Konkora seranserî ji Îranê, reviyane.



Sindûqa navnetewî a dirav ragehand ku çar heya pênc milyon xwendewar û bijardeyên Îranî di 22 welatên bîhanî weke Amerîka, Îmaretên Yekgirtî ên Erebîn, Berîtaniya, Kanada, Alman, Firansa û Siwîdê de dijîn.

# Xebat bona zindîkirina û pêşvebirina zimanê Kurdî erkeke neteweyî û stratejîk e û divê statuya kurdan biguhere heta zimanê Kurdî jî bibe zimaneke cîhanî



Azad Kurdî

Hevpeyvîn: Îdrîs Sitwet

**Tu çawa pênaseya ziman dikî?**

Bi nerîna min, ziman faktereke bingehîn a jiyan û nasnameya her gelekê ye. Alava herî giring û bi bandor a peywendiyan e ku pêvajoya jiyanê hêsan kiriye.

**Nêrîna te li ser zimanê kurdî çi ye û tu îro rojê çawan zimanê kurdî dinirxînî?**

Zimanê Kurdî yek ji wan zimanan e, ji ber sedemên siyasî û rewşa taybet a jiyana Kurdan, derfeta pêşketinê bi qasê pêdivî nebûye. Zimanê Kurdî di warê zanistî de xwedî hemû fakterên zimaneke standard e, lê heta niha jî derfeta jiyan û pêşketina normal nebûye. Zimaneke zengîn û xweser e. Li Kurdistana Başûr zêdeyî 100 sal e ku zimanê Kurdî tê xwendin û nivîsîn, lewra ji xeynî Başûr zimanê Kurdî hêj bi awayê pêwîst pêş neketiye û jiyaneke normal nake. Lê ligel hemû astengiyên siyasî, li parçeyên din ên Kurdistanê jî û li derveyî sînorên Kurdistanê, zimanzan û welatparêzên kurd zimanê Kurdî ji neman û ji navçûnê rizgar kirine. Lê ev yek têr nake, bona vê ku zimanek pêş bikeve divê bê xwendin û nivîsîn. Xala giringtir ev e ku hemû takekes di civakê de pê re biaxivin, bixwînin û binivîsin. Ger weke xebata rizgarîxwaziya kurd tenê hêviya komeke biçûk ji civakê bibe, wê demê baş pêş nakeve.

**Dibe zimanê kurdî çi taybetmendî hebe?**

Ji xwe min got: Zimanê Kurdî xwedî fakterên zimaneke kemilî û standard e. Lê ji aliyekî din jî, çend alfebayî û çend zaravbûn hinek bingehên zimanê Kurdî lawaz kiriye. Bi awaykê ku niha beşek ji kurdan nikarin ji beşa din fêm bike yan nivîs û berhemên wan bixwîne. Pirsa pirrzaravayiyê dikare bê çareserkirin, lê astenga mezin 2 alfabeyiya zimanê Kurdî ye ku kesayetiyeke ecêb dide zimanê Kurdî. Divê zimanzan û zimanperwerên kurd û navendên akademîk tedbîrekê bona vê pirsgirêkê peyda bikin û êdî pêvajoya niha zêde dom neke. Ji ber ku hewildanên heta niha zanistî nebûne û bêhtir demargirane bûne, û pirsgirêka alfabeya Kurdî nehatiye çareserkirin.




**Keko zaf ziman di cîhanê de hene û ji ber bikar neanîna hin zimanan, her sal zaf ziman ji nav diçin, gelo zimanê Kurdî kariye xwe bigehîne asta zimanên cîhanî?**

Hêj gellek maye zimanê Kurdî bigihîje sêwiya zimaneke cîhanî. Berî her tiştî pêwîste kurdan dewlet hebe, wê demê otumatîk zimanê Kurdî dibe navneteweyî. Ji xeynî vê yekê ji sedî 85'ê Kurdan heta niha jî nikarin zimanê Kurdî bikar bînin, tenê li Kurdistana Başûr ev azadî heye. lewra xebat bona zindîkirin û pêşvebirina zimanê Kurdî erkeke neteweyî û stratejîk e û divê statuya kurdan biguhere heta zimanê Kurdî jî bibe zimaneke cîhanî.

**Bi hizra te bandora zimanevanên kurd li ser geşekirina zimanê kurdî baş bûye yan ne?**

Bêguman hebûye. Hekî ne eva niha jî heye, qet nedibû. Ji berê heta niha erkê parastina zimanê Kurdî zêde ser milê zimanzan, wêjavan û nivîskaran bûye, ne hemû civakê.

**Zimanî kurdî heya çi qasî pêka zimanên cîhanî ber bi pêş ve çûye?**

Ew rewşa asîmilasyon û siyaseta tunekirin û astengên ser zimanê Kurdî hebûye, hekî ser her gel û neteweyeke din hebûya, bêguman niha sedî sed ji me xerabtir dibû. Her eva ku zimanê kurdî ji nav neçûye û jiyanê dike, gaveke mezin e. Hêj gellek dem û derfet pêdivî ye heta em bigîjin sêwiya zimaneke cîhanî. Lê zimanê Kurdî ev potansiyel heye, ger akademîsyen û zimanzan û dezgehên biryarder van derfetan bi başî veguhezînin.

**Tu li ser vê baweriyêyî ku îro rojê kirîz li ser zimanê kurdî heye? heke heye rêçare ci ne?**

Ez ne bawer im ku zimanê Kurdî di nav kirîzekê de dijî. Lê xwedî derd û pirsgirêk e. Bi taybet pirsgirêka alfabeyê, di navbera alfabeya Erebî û Latînî de. Çareserî jî mantalîteyek zanistî û berçavgirtina fakterên îro yên proseya cîhanîbûnê ne. hekî kirîza alfabeyê bê çareserkirin, nîva lawazî û pirsgirêkên zimanê Kurdî çareser dibin.

**Te çi gotinek bo zimanê kurdî û xwendevanên Agirî heye?**

Spas û serkevtinê ji hemûyan re, rica min ev e malbatên kurd bibin xwendingehên Kurdî û zarokên xwe bi xwendin û nivîsîna Kurdî perwerde bikin.

## Gotinên Pêşînan




**Dijminê aqilmend ji hevalê xayîn çêtir e:**

Dijminê aqilmend li gor jiyanê difikire û herwiha mirov jî biaqil bifikire mirov dizane dê dijminê mirov çibike. Lê dijminê herî mezin ku li ba mirov xuya bibe û xayîn be,jixwe mirov dibêje heval e, lê mirov nizane dê xayîntiyê bi mirov bike. Herwiha di nava mirov de kli mirov dixe.

**Dijminê ardûyê xwe, dostê nanê xwe ye:**

Ardû ji bo nan çêbibe mirov wî dişewitîne,dema nirov ardûyê xwe pir bişewitîne tê wê wateyê ku mirov li tenduristîya xwe miqate ye an mirov ardûyê xwe dişewitîne ji bo nanê xwe ye. Dema mirov mesrefê bike di jiyanê de jî heke mirov wê mesrefê jibo bingeha tiştekî bike baş e û mirov çiqas mesrefê an xebatê bike baş e.

**Dijminê bava nabin dostê lawa:**

Ev gotineke feodalî ye. Jibo dozên xwînî hatiye gotin. Mirovek dijmine bavekî be jixwe nabe dostê lawê wî jî. Kî dibe bila bibe ji dijminre law bav ap pismam yek e.

**Dijminê dijwar ji dostê xayîn çêtir e:**

Ev jî wekî dijminê aqilmend ji dostê xayîn çêtir e. Lê hinekî cûdatî tê de heye.Wekî ku dijminê pir dijwar be mirov jî xwe li himber wî dijwar dike an mirov li gor wê yekê devdîrên xwe çêdike.

# Şaristana Dalaho



A: Adil Muradî

Şehristana Dalaho yeak ji şaristanên parêzgeha kirmaşanê ye ku panahiya şehristana Dalaho 1930 kîlometra çargûşe ye û li rojavayê parêzgeha kirmaşanê hilketiye ku ji aliyê bakûr tevî sînorê Ciwanro û Selasê Bawecanî, ji aliyê başûr tevî Serpozehab, ji aliyê başûrê rojava tevî Gîlanxerb, ji aliyê başûrê rojhelat tevî Îslamawaya rojava û ji aliyê bakûrê rojhelat ve tevî Kirmaşanê hevsînor e.

Şaristana han av û hewayek xweş heye ku di demsala buhar û havînê de hênik û di payîz û zistanê de sar e.

Şaristana Dalaho ji du beşên, Nawendî û Gehware û ji 196 gundan pêk tê.

Di warê kevnariya şaristana Dalaho de, mîratên kevnar hene ku vedigerin bo serdemê Sasaniyan û berê serhildana Îslamê.

Pîşesaziyên destî ên vê deverê zaf in ku giringtir ji hemûyan tenbûre ku dîrokek hezar salî heye.

Em dikarin îşare bi hindek şûnwarên kevnar ên vê deverê bikin ku kevnariya wan vedigere bo berî Îslamê, mîna:

Sorxê dîzê : Di gundê Sorxê dîzê de kelhek mezin heye û vedigere bo serdemê Sasaniyan.

Taq Gera: Eywaneke ku bi kevir hatiye çêkirin û dêjin cihê mana padşayê wî serdemê bûye.

Banzerde: Ku gundek kevnar e û şûnWarên zaf hene, mîna Ban meh zaran, kelha Geh, gunbeda kelayî, kelha û birca temirî, Gitîgeha du nab, pira derwaze, kelha Wîrane, Biheşt û Cehnem, Baba Şêx û...hwd.

Ji cih û warên dîrokî ên piştî serhildana Îslamê em dikarin îşarê bi wan cihan bikin:

Ziyaretgeha Ebûdicane, Mizgefta Ebdulla kurê Omer.

## Sê kanalên ser bi PKK'ê dê li Herêma Kurdistanê weşana xwe bidomînin




**Wezareta Rewşenbîrî a Herêma Kurdistanê eşkere kir ku, bi mercê pabendbûn bi yasa û rênimayîyên Herêma Kurdistanê, kanalên ku li ser biryara dadgeha Danmarkê hatibûn daxistin, dikarin li Herêma Kurdistanê kar bikin.**

Helgord Ebdulla rêveberê ragehandin û çapemeniyan di Wezareta Rewşenbîrî de got ku: “Daxistina kanalên Kurdî ji aliyê Danmarkê ve, hokarên siyasî hene”.

Hewceyî basê ye ku dadgeha Danmarkê cezayê du milyon “Euro”yî bi ser kompaniya Mezopotamya de sepand û herweha weşana sê kanalên MMC, Nûçe TV û Roj TV ên ser bi PKK'ê sekinand. Hevdem berpirsên wan sê kanalan di konfiransek ragehandinî de ku li bajarê Silêmaniyê pêk hat, daxwaz ji Herêma Kurdistanê kirin ku rê bide wan da ku kanalên wan li Herêma Kurdistanê werin ser ekranê.

## Komara Îslamî a Îranê hêza pasdarên Kurd ava dike



**Li gorî nûçeya malpera Rûdaw, Rejîma Komara Îslamî a Îranê dixwaze li Kurdistana Rojhilat “çekdarên kurd ên ser bi Komara Îslamî ya Îranê” di bin navê rêxistinekê de kom bike û wek hêzek taybet bikar bîne.**

Fermandeyekî Sipaha Pasdaran ragehand a ku li ser daxwaza rêberê olî Ayetullah Xaminêyî dê hêzek taybet ji bo Kurdistan Îranê ava bikin.

Wî pasdarî da zanîn ku hêza han dê ji çekdarên kurd ên li nav hêzên pasdar de pêk bê û da zanîn,mebest ji avakirina hêza han dabînkirina ewlehiyê di Kurdistanê de ye.

Hêjayî basê ye ku rejîma Komara Îslamî a Îranê bona tepeseriya xelkê Kurdistanê ku tu carî serî bo daxwazên wan netevandine, ji tev siyasetên qirêj û gemar mifah wergirtiye û dest bo her cînayetekê biriye, lê xelkê Kurdistanê berdewam in li ser daxwazên xwe yên rewa û bo gihîştina bi wan daxwazan gellek nirxên giran jî dane.

# AGIRÎ

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Tel: (+)9647503640792

## Piştî sed salî bo yekem car tîrêjên rojê dîtin



Piştî hewlek zaf a şarezayan, bi danîna çend xûedîkên mezin li ser çiyayên derdora bajareke welatê Norwêjê de ji bo veguhastina tîrêjên rojê, ku bi dirêjahiya dîrokê di zivistanê de tîrêja rojê lê nedida, bo yekem car di zivstanê de rojê li vî bajarî da.

Bajarê pîşesazî yê "Rjukan" li devera Têlêmark a ser bi welatê Norwêj ku di navbera çend giran de hilketiye, di demsala zivistanê de tîrêja rojê bi awayekî nizim li ser esmanê bajar de derbaz dibû, lewra di despêka çêkirina wî bajarî heya niha di demsala zivistanê de bi tu awayekê rojê lê nedida.

Şarezayan karîn bi hilîkopterê sê xûedîkên mezin, ku 450 metr bilind in, li ser girên derdora bajar danên, bi vî awayî di zivistana îsal de hevwelatiyên wî bajarî dikarin xweşiyê ji tîrêja rojê werbigrin.

## Berhemê sînemakarekî kurd xelata festîvala fîlma "Reşekanî Birlîn" bi dest anî




Fîlma "Sîberdi dawî bîranînên rûbar de" ji derhêneriya û sînemakarê kurd xelata sêzdehemîn festîvala navnetewî ya fîlma Reşekanî Birlînî wergirt.

Fîlm ji deranîna Riza Mihemedî tevî 7 fîlmên din ên welatê Alman hat nîşandan û ji aliyê lêjneya dadweran ve xelata baştirîn fîlma Enîmeyşinî hat dan.

Li gor ragehandinan, ev festîlal e di pêşerojek nêzîk de, dê li welatê Amerîka jî birêve here.

Fîlma "sîber di dawî bîranînên rûbar de" duyemîn berhemê Riza Mihemedî ye û bo cara yekem li yazdehemîn dora festîvala deverî li bajarê Sine de hat nîşandan.

## Mirov çawa jiyanê derbaz dike



Şarezayan di vekolînekê de di warê çawaniya derbazkirina jiyana kesek asayî çend amarek derxistin holê ku bi vî awayê ye:

1- Mirovek asayî 130 hezar kîlometran bi pê diçe
2- Nohed milyon peyvan qise dike.
3- Hejdeh sal bi pêyan diçe
4- Bi qiasî bîst û pênc hespan wizeyê (Enirjî, Têhn) bikar tîne.
5- Sêsed ton giraniyê hildigre.
6- Sed û pênc rojan di nav avê de dimîne.
7- Bîst û şes salan dirazê.
8- Bi awayek giştî du sal bi telefonê diaxive.
9- Bi qasî kûpiyek qehwe û şekir di leşê wî/ê de ye.
10- Di leşê wî/ê de hin fisfor heye ku têra çêkirina du hezar gûdikan (Şiqarteyan) dike.
11- Pênc sal jiyana xwe bi xwe şûştin û çûna W.C derbaz dike.
12- Nêzîkî panizdeh sal jiyana xwe bi karkirinê derbaz dike.